Bi destveanîna Mafên Netewî Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 143
22'ê Îlon a 2010
Buha: 150 Tûmen

agiri

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

PDK Îranê di daxuyaniyekê de teqîna Mehabadê mehkûm û şermezar kir R: 2

# Şerefkendî Sembola Xebat Û Tekoşînê






Dr. Kendal Nezan di hevpeyvînek taybetî de

Taybet R:1



Parêzer Luqman Mêhrfer di got û bêjek taybetî de

Taybet R: 3

# Daxuyaniya Deftera Siyasî a PDKÎ derheq teqîna Mehabadê

**Hevwelatiyên birêz!**
**Civatên xelkê Kurdistanê!**

Îro Çarşemî, 31’ê Xermana 1389’ê Rojî, hevberî 22’ê Îlona 2010’ê Zayînî, demjimêr 11’ê pêşnîvro li dema birêveçûna rêjeya û nimayîşa hêzên leşkirî bi boneya destpêkirina hefteya ‘’Dîfai Moqedes’’li bajarê Mehabadê de, teqînek li cihê nimayîşa hêzan û li nav koma xelkê asayî de çê bû ku bûye sedema kuştin û birîndar bûna bi dehan kesan ku li nava wan de jî hejmarek jin û zarok tên dîtin.

Li vê derheqê de Deftera Siyasî a PDK Îranê, vê kiryarê weke kiryarek kirêt û mirar ku xelkê asayî kiriye armanc û canê hejmarek ji jin û zarokan jê stand, bi tundî mehkûm û şermezar dike. Hevdem serxweşiyê ji malbat û kes û karên goriyên xelkê asayî dike û xwe bi şirîkê xema jidestçûna xweştiviyên wan dizane.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**31.06.1389’ê Rojî**
**22.09.2010’ê Zayînî**



# Daxuyaniya Polîtbîroya PDKÎ derheq serkevtina Referandomê li

Roja 12’ê Îlona 2010’an, Yasaya Bingehîn a Turkiyê ku berhema kûditaya Jeneralên wî welatî bû, piştî destkarîkirinê ji aliyê partiya Dad û Geşepêdanê (AKP)ê, kete ber refrandoma xelkê wî welatî. Di vê refrandomê de, 26 xalên vê yasayê ku astengên sereke bûn li ser berfirehbûna demokrasiyê di wî welatî de weke desthilat û pêkhateya Dadgeha Bilind a welatê, desthilata Erteşê....d ji aliyê piraniya xelkê vî welatî ve hat pejirandin û bi vî awayî di pêşerojê de damokrasî di vî welatî de dê kûrtir reh û rîşeya xwe dakute û dikare di vê rêyê de harîkar be bo guhartinên pêtir di yasayê û çareserkirina aştîxwazane a pirsa Kurd ku yek ji giringtirîn û kevintirîn pirisgirêkên welatê Turkiyê ye. Ewa ku bo PDKÎ û gelê Kurd di hemû beşan de di vê peywendiyê de giring e ev in:

1- Di Rojhilata Navîn de, zordarî û serberdatiya hikûmetên desthilatdar û nebûna demokrasiyê, çavkaniya beşekî herî zêde a hemû wan çarereşî û rojên reş in ku salanekî dûr û dirêje akinciyên wan deveran pêve dinalin û di vê navberê de, gelê Kurd beşa herî zêde a wan rojên reş li ber ketiye, lewra em serkevtina her pêngavekê ber bi demokrasiyê, bi paşekêşekirina dîktatoriyê dizanîn û pêşwaziyê lê dikîn.

2- Bêguman her ev sedem û hêviya bûye handerekî bihêz ku xûşk û birên me li Turkiyê bi germî beşdarî di vê refrandomê de



bikin, bi terzekî ku serhejmariyan nîşan da ku zêdetirîn rêjeya beşdarî û dengdan bi (belê) bi vê guhartinê di deverên Kurd Akinciyên Turkiyê de bûye. Ku wusane serkevtina vê refrandomê yek ji daxwazên zorahî Kurdên Turkiyê bûye û em jî bi bi cî hatina wê daxwaza xweşk û birên xwe dilxwaş û serbilindîn. Her ev beşdarîkirine vê rastiyê nîşan dide ku Kurd wek gelekî aştîxwaz eger derfeta xebata sivîl bo wan pêk were amade ne bi temamî ji vê fersendê bo bidestveanîna daxwazên xwe mifahê bistînin.

3- Di demekê de ku di Îrana jêr deshilata Komara Îslamî de hemû deryên xebata sivîl bo bidestveanîna mafên takekesî û girûpî bi taybetî mafên siyasî ên netewên zulimlêkirî ên Îranê û yek ji wan Kurdên wî welatî hatine daxistin, li welatê cînarê Îranê û li wê jî zêdetir bo Kurdên aliyê din ên sînor, derfeta azadiyekî berîntir pêk tê, bi terzekê ku rêz ji dengê wan tê girtin û bi bandor dibe li ser çarenivîsa wan. Em wek Kurdê azadîxwaz wan diyardeyan dibînin û pişgiriyê lê dikîn.

Bi wan sedeman û gelek sedemên din ku behskirina wan di vê derfetê de nine, PDKÎ pêşwaziyê ji wan guhartinane dike û bi vê hincetê pîrozbahiyê ji xûşk û birên xwe li Kurdistana Turkiyê û hemû wan kes û aliyan dike ku bo serxistina vê refrandomê bi micidî û çalakane têkoşîn kirine.

Eger di nav wan xalên destûrî de ku ketin ber refrandomê, bi awayê diyarîkirî li ser pirsa Kurd tu xalek têde nehatiye cihkirin, lê bêguman berfirehbûna demokrasiyê bi guhartina wan xalên ku ketine ber refrandomê dibe sebeb ku hemû Kurdek wek azadîxwazên din yên wî welatî pişkdar bin.

Em hîvîdar in ku ev guhartinane di yasaya bingehîn a welatê Turkiyê de destpêkek bin bo vekirirna pêtir a demokrasiyê û ji holê rakirina astengên yasayî li ser rêya çareserkirina aştîxwazane a pirsa Kurd. Herwiha hêvîdatin ku xûşk û birên me ên Kurd bi jêhatî û hişyariya taybetî a xwe bikarin pêtir mifahê ji vê vekirinê werbigirin bo pêşdebirina pirsên peywendîdar bi xwe, bi taybetî pirsên siyasî.

**Partiya Demokrat a kurdistana Îranê**
**23’ê Xermanana 1389 a Rojî**
**14’ê Îlona 2010 a Zayînî**

# Peyama Pîrozbahiya Sekerterê Giştî ê PDKÎ bi hilkevta cejna Remezanê

Xelkê azadîxwaz û xebatkar ê kurdistanê!
Bi hilkevta Cejna Remezana Pîroz, em pîrozbahiya xwe pêşkêşî we yên xoştevî û bi taybetî xûşk û birayên xwe li Kurdistana Îranê dikin.
Hêvîxwazîn îbadeta we qebûl û hemû rojên jiyana we cejn û xweşî bin.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Sekerterê giştî**
**Mistefa Hicrî**
**Remezana 2010’an a Zayînî**



## Gotinên Obama; amadekirina raya giştî a Amerîkayê?

Serokkomarê Amerîkayê, di got û bêjekê de ragihand ku ji bo riftarkirin ligel Îranê, hemû rêçare û bijarde li ser masê ne. Obama got: Herçend ku rêçareya nîzamî ji bo çareseriya pirsa Îranê baştirîn rêkar nine, lê emê hemû şêwazên riftar û berbirûbûna ligel Îranê de li ser masê rabigirin.

Pirraniya siyasetvanên Amerîkayê herweha Wezîrê berê yê Derveyî Amerîkayê, di wê bawerê de ne ku tehrîmxistine ser Îranê nikare vê rejîmê neçar bi sekinandina pirogiramên etomî bike.

Bi raya zana û pisporên siyasî, gotinên Serokkomarê Amerîkayê bo amadekirina raya giştî a wî welatî ye di warê îmkana êrîşa nîzamî li dijî Komara Îslamî a Îranê di sala nû a Zayînî de.



# Deqa Axaftina Hesen Şerefî, Di Rê û resma 18' mîn Salvegera Şehîdkirina Dr. Sadiq Û Hevalên Wî De

**Hevalên rêzdar!**
**Xûşk û birayên xweştevî!**

Îro 26'ê Xermananê ye, rojek ku bîranîna bûyerek nexwş û dilêş e ji bo partiya me û bo bizava Kurd bi giştî. Çimku di vê rojê û di sala 1371 a Rojî de, Dr. Sadiq Şerefkenîd, Sekreterê Giştî yê wê demê ê partiya me û Fetah Ebdulî, endamê Komîteya Navendî û nûnerê Partiyê li derveyî welat, Humayûn Erdelan, berpirsê partiyê li welatê Almaniya û Nûrî Dêhkurdî dostê nêzîk yê bizava Kurd ji aliyê terorîstên Komara Îslamî a Îranê li Berlînê hatin terorkirin. Ji wê demê ve heya niha em hemû salê di vê rojê de li her cihekê û bi her awayekê ku bigunce, li dewra hevdu kom dibin û rêûresman pêk tînin. Herçend ku tu carekê ew şehîdêm me ji bîra me naçin û ji dilê me de dernakevin. Em wira kom dibin daku rêz ji jiyana wan a serbilind û tekoşîna wan a pirr ji cangorîtî Bigirin. Rûmet û fîdakariyên wan ên mezin dixin ber çavê ciwanên netewa Kurd, nemaze nifşa niha. Herwiha nefret û bêzariya xwe ji terorîzma dewletî a komara Îslamî ya Îranê û gişt rejîma paremayî û dîktator dubare dikin.

Çima em rêz ji jiyan û xebata Dr. Sadiq Şerefkendî digirîn û di rojek weke îro de herdem wî bi bîr tînin?. Dr. Sadiq di malbatek welatparêz de ji dayîk bibû, herçend ku navbirî pirr zû ji evîna bavê xwe bêpar bû, lê sîbera birê wî yê mezin û welatparêz anku helbestvanê mezin yê Kurd, Mamosta Hejar herdem li ser serê wî bû. Ku wisan e Dr. Seîd her ji zarokatiyê de hesta netewî û hizra Kurdperweriyê hebû û ji malbata xwe wergirtibû. Wî li temenê 7-8 saliyê de Komara Kurdistanê û desthilata demokratîk a Kurdî dîtiye ku eva jî bi qasê xwe bandor li ser hest û hizra wî daniye. Piştî hiloşandina Komara Kurdistanê Dr. Seîd yan bi xwe hest pê kiriye yan jêre hatibe gotin, ev rastiya liberçav bûye ku yek ji derdên Kurdan nexwendewariye. Lewra ger em bixwazin jiyana wî bo ser sê beşan de parvekin, di her sê qonaxan de wî hesta xizmetkirin bi civak û bi netewa xwe her ji zarokatiyê de hebûye. Dr. Seîd bo ewê ku nexwendewarî nemîne yan pileya xwendewariya ciwanên Kurd bilind be, bi xwe di vî warê de bi micidî gav avêtin. Lewra Dr. Seîd di hemû dewranên xwendina xwe de, hem di dewrana despêkî û hem navendî û piştî navendî û dewrana xwendina zankoyê herdem qutabiyek nimûne û zîrek bû. Navbirî di zanîngeha bilin de xwendina xwe bi dawî tîne û weke mamostayekî waneya şîmî diveger bo Kurdistanê û di hinek ji bajarên Kurdistanê de waneyê dibêje. Ger heya niha Dr. Sadiq erkê pêgehandin û jordebirina pileya zanistiya xwe bi başî encam dabe, li vir pêde dixwaze erkê pêgihandin û bilindkirina pileya zanistî a ciwanên netewa Kurd di wan bajar û cihên ku wane digot, cîbicî bike. Navbirî di vê pêwendiyê de gellek bi micidî û bi berfirehî tevî komek ji mamostayên hevhizrê xwe kar dikir û di ew heyama ku wan waneyên dersî digotin, bi terzek gellek balkêş hejmara qutabiyên Kurd di zankoyên Îranê de zêde bû. Eva jî bo malbatên Kurd ku didîtin zarokên wan diçin bo zankoyê pirr dilxweşker bû. Lê eva ji bo rejîma tevlîhev a Paşayetî pirr nexweş bû û ji karê Dr. Sadiq û hevkarên wî pirr nîgeran bû, lewra wan Dr. Sadiq û hevalên wî ji bo bajarên navenda Îranê dûr xistin. Dr. Sadiq jî ji vê derfetê mifah stand û ji ber ku xwediyê pilyeya xwendekarê nimûne di zankoya bilind de bû, karî ji vê îmtiyazê mifahê bistîne û borsiya xwendinê li Feransê wergirt û bi armanca domandina xwendina xwe çû wir û li wir bawernameya dukturayê di rişteya şîmî de wergirt. Serkevtina Dr. Sadiq Şerefkenî di Parîsê de her eva nebû ku di warê zanistî ve bawernameya dukturiyê wergirtiye û gihîştiye pileyekî din ê zanistî, belku wî li wir serkevtinek din û ber bi pêşçûnek din bi xwe ve dît ku di rastî yek ji awatên wî bû. Ew jî nasiyarî tevî Dr. Qasimloyê rêber û mamostayê me yê mezin ku alahilgirê xebata neteweyek bû ku rizgariya wê hêviya Dr. Sadiq şerefkenî jî bû. Dr. Qasimloye nemir, Sekreterê Giştî yê PDKÎ ku dilê Dr. Sadiq şerefkendî jî digel de bû, her li wir deriyê Partiya Demokrat li ser Şerefkendî vekir û navbirî bi fermî bû endamê PDKÎ.

Dr. Sadiq piştî wergirtina bawernameya xwe a dukturayê û di dema vegerana xwe bo Îranê, tevî vê yekê ku erkê pêgehandin û perwerdekirina ciwanan di zankoyên Îranê de bigiştî û ciwan û xwendekarên Kurd bitaybetî li Tehranê girtibû stûyê xwe, erkê karûbarên rêxistinî jî bi terzek nepenî birêve dibir. Navbirî di hemû karan de kêrhatîbû, zîrekî û zanabûna xwe nîşan da. Dema ku şoreşa gelên Îranê serkevt û PDK Îranê tekoşîna xwe a eşkere dest pêkir, tekoşîna nepenî a Dr. Sadiq Şerefkenî bo xebata eşkere guherî. Dema ku Kurdistan kete ber êrîşên rejîma Îranê, pêka biryarê diviya gişt endamên rêberî û kadro û pêşmerge Kurdistnê bi cî bihêlin, lê li ser biryara rêberiya PDKÎ, Dr. Sadiq Şerefkenî diviya di ew cihê de be ku rêberî li wir bû û navbirî bi dil û can ew erka bicî gehand, herçend ku bi xwe jî endamê rêberiya Partiyê bû.

Dr. Sadiq di her postekê de, çi dema ku endamê Deftera Siyasî bû û çi dema cîgirê Sekreterê Giştî yê Partiyê bû, erkên xwe bi ciwanî bicî gihandiye û hemû ew kesên ku bi wî re kar kirine yan heta ji dûr ve nasiyarî tevî karûbarên partiyê û rola Dr. Sadiq hebûn, dizanîn ku Dr. çiqas bi başî û bi zanayî û bi bername ve erkên xwe birêve dibir. Erkên Dr. Sadiq Şerefkendî tenê di çarçoveya karûbarên partiyê û ew berpirsayetiyên ku di organan de hebû, xilas nedibû, belku ew hevalekî herî nêzîk



**"Em dirêjederê rêbaza rêberên xwe, îro li vir kom bûne daku bo çendimîn car soza xwe bona domandina rêbaza wan heya serkevtin û gihîştin bi armancên wan nû bikin"**

yê Dr. Qasimlo bû, ew kesayetiyekî zor bibandor bû di nava partiyê de. Dr. Seîd bandorek pirr girnîg hebû li ser ewê ku rêbaza Dr. Qasimlo di partiyê de bi tewahî cihgîr be û ew pirensîpên ku Dr. Qasimlo pêdagirî li ser cîbicîkirina wan dikir, bi cî werin, çimku Dr. Seîd jî baweriyek kûr bi wan hizran hebû,. Gişt ew çandên nû ên ku Dr. Qasimlo dianîn bo nava partiyê de, Dr. Sadiq weke mêmarekî şareza di nava partiyê de cihgîr dikir. Piştî terora Dr. Qasimlo diviya Dr. Seîd weke cîgirê sekreterê giştî, berpirsayetiya yekem a partiyê bigirtiba stûyê xwe. Di halekê de ku kul û kovana ji destçûna Dr. Qasimlo di dilê wî de bû, di halekê de ku berpirsayetiya yekem a Partiya Demokrat li ser milên wî bû û di halekê de ku mijûlê hewildanê bû bona pirrkirina cihê betal yê Dr. Qasimlo di nava Partî û bizavê de, serbarê hebûna hemû ew rewş û zirûfane, kêrhatîbûn, şiyan û netirsiyek ji xwe nîşan da ku ew armancên ku hewce bû bicî bigehîne, bicî gehand. Wî gellek caran digot berpirsatiya yekem di nava PDK Îranê de berpirsatiyek pirr giran e, lê ev giraniya demekê bo berpirsê yekem zêde derdikeve ku diçe cihê Dr. Qasimlo. Çimku diviya êşa nebûna Qasimlo di dilê wî de be, diviya berpirsatiya yekem a partiyê bigire stûyê xwe, diviya cihê betal yê Dr. Qasimlo tejî bike û hemû ew çavnihêriyan bicî bîne ku ger Dr. Qasimlo zindî maba, dê bikarîba wan cîbicî bike.

Me dît ku Dr. Sadiq Şerefkenî di hemû ew waran de û di hemû ew qonaxên dîroka Partiya me de, rola xwe bi başî bicî gihand û bandora xwe bi başî nîşan da. Ew di dirêjahiya ew heyamê ku berpirsê yekem yê partiyê bû, xwedî bername bû, pak bû weke navê xwe, fîdakar bû her wek çawa heya dema dawîn a jiyana xwe berpirsatiya xwe birêve bir. Taybetmendî û



## “Dr. Sadiq di her postekê de, çi dema ku endamê Deftera Siyasî bû û çi dema cîgirê Sekreterê Giştî yê Partiyê bû, erkên xwe bi ciwanî bicî gihandiye”

bandorxistinên Dr. Sadiq bûn ku rê neda armancên rejîma Komara Îslamî a Îranê bi wî terzê ku pîlan jêre darêtibû û hez dikr, cîbicî bin. kê neda ku rejîm bigîje armancên xwe, eva jî bû sebeb ku Dr. Sadiq Şerefkendî jî bibe armanca pîlana rejîmê û mixabin di welatê Almaniya û li bajarê Berlînê di rojeke weke îro de, canê Dr. Seîd lê standin û Dr. Şerefkendî bi tewahî ji Partiya Demokrat û bizava Kurd, sitandin.

Bi terora Dr. Sadiq Şerefkendî, Fetah Ebdulî, Humayûn û Dêhkirdî, polîsê Almanya gellek zû bikuj û tawanbar destbiser kirin, lê di wê demê de helwesta Komara Îslamî çi bû? Rejîma Îranê her di destpêkê de xwest ku şûnpiyê xwe wunda bike, ji aliyekê ve destê tawanê bo aliyeke din dirêj dikir bo ewê ku xwe ji vê pirsê dûr bixe û ji aliyek din ve bi gefxwarin û dana poanan û bi pêwendîgirtin û pêkanîna zextê bo dewleta wê demê a Almaniya, dixwast pêşî ji ber pêşveçûna pêvajoya dadgehê bigire, karek ku di Utrîşê de kiribû û têde serkevtî bibû. Dewleta Almaniya ji aliyekê ve seba hebûna berjewendiyên xwe ên aborî û siyasî û hinek têdîtinên din ku tevî Îranê û ji aliyek din ve seba hebûna serxwebûna dezgeha dadwerî a welatê xwe nedizanî diviya çi bike û di zirûfekê de bû ku hewlestgirtin jêre pirr zehmet bû. Lê wê demê her çawa be dîsan hinek ji karbidestên wê demê ên dewleta Almaniya û li serveyî hemûyan Wezîrê Karûbarên Derve yê wî welatî pirr hewil dan ku bi curekê heza Îranê dabîn bikin, lê bi xweşî ve dezgeha dadwerî a Almaniya ji serxwebûna xwe mifah wergirt û pêvajoya karên dadgehê heya ew cihê dom kir ku tawanbarên sereke ên terorê ku rejîma Îranê bû, bi cîhanê da nasîn.

Ger ew karê ku dezgeha dadweriya Almaniya kir û ew netirsiya ku ji xwe ve nîşan da û neçû jêr bandora rejîma Komara Îslamî a Îran û heta welatê xwe jî, dezgeha dadweriya Utrîşê jî kiriba, renge em şahidê mirina xweşteviyên weke Dr. Sadiq Şerefkendî, kekê Fetah, Humayûn Erdelan û Nûrî Dihkurî û gişt ew kesên ku piştî rûdawa Utrîşê ji opozisiyona Îranî hatin terorkirin û ji dest çûn, neban.

Dezgeha dadweriya Almaniya piştî sê sal lêkolînkirin û wergirtina îtirafê ji encamderên terorê û beşdariya çendîn şahidên cihê baweriyê û şareza ji karûbarên dezgehên ewlekarî ên rejîma Komara Îslamî a Îranê di dadgehê de, ew pêvajoye ber bi pêş meşand ku encama wê rûreşî ji bo rejîma Komara Îslamî a Îranê bû.

Encama ew biryarê çi bû? Raste xweşteviyên me û şehîdên Partiya me nevegeriyane bal me, lê gişt welatên Ewrûpî balyozên xwe ji Îranê gazî kirin, herçend ku ew kare demkî bû û dîsan Wegeriyan Tehranê, lê destkevta ew hereketê û biryara dadgehê eva bû rejîma Îranê fehm kir ku îdî nikare di tu welatekê de mirovan bikuje, rêberên siyasî ên netewan û opozisiyonên Îranî teror bike, eva di halekê de ye ku siyaseta perwerdekirina terorîzman û terorkirinê her di cihê xwe de ye, lê meydan ji bo rejîmê Îranê, aliyê kêm di Ewrûpayê de piştî biryara dadgeha Mîkonosê jêre teng bû.

Her weke min berê jî îşare pêkir terora Dr. Şerefkendî ji bo rejîma Îranê tewawkerê ew pîlanê bû ku ji bo terora Dr. Qasimlo darêtibû ku armanca wê derbelêdan ji Partiya Demokrat bû bi terzekê ku îdî nerabe li ser pêyên xwe bisekine yan ji nav here. Lê me dît ku serbarê ewê ku birîna nebûna Dr. Qasimlo û Dr. Şerefkenî li ser laşê partiya me û li ser cesteya bizava gelê Kurd pirr kûr û bi êş û jan e, lê ji ber ewê ku berê şêwaza rêberiya bikom di nava Partiya me de cih girtibû, partiyê piştî wan jî li her ser pêyan xwe sekinî, herçend ku tejîkirina cihê betal yê wan rêberên mezin pirr zehmet e.

Fetah Ebdulî, ciwanekî pêgehiştî bû ku di rêberiya partiyê de berpirsatiyên curbicur hebûn û mixabin wî ji di ew bûyerê de canê xwe ji dest da. Birêz Humayûn kadroyê partiyê di deverên curbicur de xizmet kirbû û di welatê Almaniya de akincî bibû û di vê bûyerê de canê xwe ji dest da. Nûrî Dihkurdî jî dostê bizava Kurd bû. Yên ku tên bîra wan dizanin ku Dihkurdî di Ewrûpa de dihate nava binkeyên pêşmergan de û di nêzîk ve tevî fezaya xebat û berxwedana kadro û pêşmergên partiyê dijiya. Mixabin wî jî weke yên din canê xwe ji dest da.

Min pê xweş e wê yekê bibêjim ku rewş û pêgeha PDK Îranê, bandora wê di pêvajoya xebata dijî dîktatoriya Koamra Îslamî ew qas zêde ye ku rejîma Îranê berdewan jêre pîlanan dadirêje. Bê şik gellek ji wan pîlanan ron û eşkere ne, weke ew birînên ku bi terora rêberên me kete bedena partiyê, weke hemû ew terorên ku bi sedan kadroyên me ji me sitand, weke ew bombebaranên ku hatine kirin,

weke ew zîndaniyên tekoşer ên siyasî ku dilsojî bizava netewa Kurd bûn, evane hemû pîlan in li dijî bizava me ku hemû diyar in û liberçavê me ne. Lê min pê xweşe bibêjim heya dema ku Partiya Deomkrat li ser xebata xwe bo demokrasiyê ku tevî baweriyên rejîmê yek nagirin berdewa be heya dema ku partiya meli ser xebat bo mafên netewî ku tevî hizr û ramanên rêberên rejîmê dijberî heye, berdewam be, pîlanên rejîmê jî dê li ser wê partiyê berdewam be. Lewra divêt partiya demokrat hay ji gişt pîlanên rejîmê ên eşkere û nepenî hebe. Rejîm ji hemû aliyekê ve pîlanan dadirêje bo bêhêvîkirin, dilsarkirin, biçukdeanîn û kêmrengkirina xebatê. Lê gelo Partiya me serbarê hebûna wan hemû pîlanên eşkere û nepenî qeyî biçok de hatiye? Bo rojekê jî be heta metrekê ji xebat û rêbaza şehîd û rêberên xwe dûr ketiye? Ev partiye xweidyê 65 sal ji ezmûnên xebatê ye, zirûfên pirr tall û dijwar dîtiye û xwe li hember de ragirtiye. Di pêvajoya wê xebatê de serekevtin jî bidest xistiye, lê eva sirûştê partiya me bûye ku di dema serkevtinan de qet xwe wunda nekiriye, çimku bawermend e ku serkevtina dawî û mezin li pêşiya wê ye. Di zirûfên dijwar û nexweş de jî herdem xweragir û hêvîdar bûye. Her lewra kariye ew rêya dûr û dirêj a 65 salan biqetîne û îro ew partiye be ku netewa Kurd şanaziyê pê dike.

Em domkerê rêbaza rêberên xwe, lewra îro li vir kom bûne daku bo çendimîn car soza xwe bona domandina rêbaza wan heya serxistin û gihîştin bi armancên wan nû bikin.

Ez Xatircem in û divêt gelê me jî xatircem be ku partiya me, ew hêz û şiyana heye ku her bimîne wek çawa di hemû zirûfên dijwar de maye û pêşketiye. Lewra hewce ye ku em ji derfetên curbicur mifaê bistînin û dest bixin nava dest hev û bi piştevaniya ciwanên netewa xwe serkevtina vê rêbazê misoger bikin ku Dr. Qasimlo, Dr. Seîd û gişt hevalên din canê xwe di pêxema wê de kirine gorî.

Hîvîdarim ku temenê rejîma Komara Îslamî ji vê hindê zêdetir dom neke ku car din pîlan û cînayetan bike. Eva jî erkek e li ser milê gişt glên Îranê, nemaze gelê Kurd û partiya Demokrat ku bona bidawîanîna temenê rejîmê hewlên zêdetir bidin.

Car din rûreşiyê ji bo terorîzma komara Îslamî, bo desthilata wê a biyûm û paremayî û dîktator bi hêvî dixwazim.

Riha gişt rêber û hevalên me ên şehîd demekê şa dibe ku gelê me serbikeve, çimku gihîştina gelê me bi hêviyên xwe riha wan şa dike û eva jî tenê bi domandia rêbaza wan cîbicî dibe.

saxî û tendurustî û serkevtin ji bo we.

Serkevtina dawîn bo cîbicîkirina awatên rêberên me ên şehîd û PDK Îranê.

Hîvî dikim ku rojên tall û birînên wiha îdî qet nekeve ser laşê prtiya me.

## RONÎ

## Quncikek ji bo şiroveya bûyer û babetan ji xwendevanên ”Agirî” re

**Ebdulla Hicab**



# Roniya Rehmanî li ku, Taca Keyanî li ku

Serokkomarê Îranê, Mehmûd Ehmedînijad piştî ku reqîbên xwe yên xurte siyasî yek li pey yê din ji deselatê dûr xistin, niha xewnên hê mezintir dibîne. Carna ew bi şêvirmend û xizmê xwe yê nêzîk Rehîm Meşayî re li ser sifreya Îmam Zeman rûdine u pilana ”rizgar kirina” cîhanê ji dest deselatdarên dijberî xwe çê dike, carna di xeyala xwe de swarê hespê ”Koriş” paşayê Hexameniş dibe û xewna serdariya cîhanê dibîne. Di civîna Civata Giştiye Neteweyên Yekgirtî de, xermaneya roniya Rehmanî li dor stuyê xwe dibîne, û niha jî bi xewn Taca Keyanî didane serê xwe û dibe Koriş ê dîrokê, an her nebe bi Koriş re rûdinê û xwe tîne rêza wî û dixwaze bibe serdarek dîrokî di Îrana îro de.

Mijara xeyalên Ehmedînijad ku xwe bi xewn û xeyalan dixe civata Mezin û dîroksazan de tiştek nû nîne. Heya niha di çend derfetan de, wî hewl daye ku navê xwe bixe nav navên navdaran û şopa xwe bixe dîroka Îranê. Her nebe bi xeyal, hewayek weha di serê xwe de dijîne. Munasibetên cuda ji bo wê pilana wî derfet in. Di wê dema dawî de, mûzexaneya neteweiye Îranê, ji bo pîşangehek 3 heyvî, Menşûra Koriş, ku bizmarnivîsek kurt li ser girdîlek kevir e, ji mûzexaneya Ingilîs bi deyn wegirt. Bi wê munasibetê, Ehmedînijad û wezîr û şêvirmendên wî ketin rêzê ku serdana wê Menşûra dîrokî bikin û di wê derbarê de daxuyanî dan û axaftin kirin. Yekê ev Menşûr weke bingeha Mafê Mirovan da nasandin. Yê din rengê olî dayê û ev Menşûr bire rêza pirtûkên asmanî û hemûyan bi hev re xwe bi wê Menşûrê serbilind û serfiraz nîşan dan. Weke çawan ku tu bêjî aha niha ev dersa dîrokê xwendibin û taze Koriş û Menşûra wî ya di derbarê hurmet girtin ji bo ol û ayînên cuda nas kiribin.

Dibêjin derewîn korfam e. Li ser wê bingehê, mekteba derew û felsefeya xeyalatên dûr ji eqlaniyetê jî bi korfamî endamên xwe perwerde dike. Lewma Ehmedînijad û hevbîrên wî xwe ji gotinên rêber û pêşengê xwe, Xumeynî û şagirtê wî Xameneyî di derbarê dîroka paşatiyên Îranê de nake xwedî û bi awayek din basî dîroka xwe dike. Xumeynî ku dîroka Paşatiyê û hemû karê ku paşayên Pers û Arî di dîroka Îranê de kirinî bi ”xiyanet”, ”fesad” û karê Ehrîmenî dizanî li pey xwe re Ehmedînijad hiştiye ku berevajiyê mamosta û pêşengê xwe, lê bi navê wî bi awayek cuda temaşey dîroka xwe dike.

Lê Ehmedînijad û şêvirmendên wî, nêzîkbûna Xumeynî ji dîroka paşatiya Îranê re ji bîr nekirine. Projeya Ehmedînijad û tundajoyên ku ev li gor pîvan û daxwaziya wan dimeşe pêwîstî bi elemanên nû heye heya ku bi pêşve here. Ehmedînijad dizane ku duruşmên 30 sale yên Komara Îslamî tu karîgerî nemane û êdî kiryar nînin. Lewma nasyonalîzma veşartî di kûrahiya civakê de divejîne û dixwaze êdî bi wê çekê dîktatoriya Wilayetê Feqîh bimeşîne.



Beriya ku vegera ji nasyonalîzmê bikeve rojeva siyasiye Ehmedînijad û hevbîrên wî, pirojeya xwe pir çek kirinê destpê kiribû. Îran ji aliyekê ve bi her du milan çekên moderen kom dike û di warê teknolojiya serbazî de xwe pêşve dibe, ji aliyek din ve li ser pirojeya Atomî kar dike. Bi awayekê ku bernameya navokiye xwe, di warê leşkerî de jî gîhandiye nêzîk asta berhemdanê. Dema ew program bigehe qonaxa dawî û Ehmedînijad û generalên wî bike xwediyê teknolojiya Atomî ya leşkerî, êdî hêza leşkerî ji bo pêşve birina bernameyên siyasiye rêjîmê tekûz dibe.

Hevdem digel pêşvebirina şiyana leşkerî, Ehmedînijad û Xameneyî deselata fermandar û generalên Besîc û Sipahê Pasdaran jî xurt dikin. Dezgehên bilind yên birêveberiyê yek li pey ya din dikevin destê fermandarên Sipah û Besîc, siyaseta derve ji aliyê fermandarên leşkerî ve tê diyarî kirin û Ehmedînijad nûnerên taybet ji bo karê derve diyar dike ku ew karê wî bêy îzna Xameneyî û Sipaha Pasdaran nebûn. Bi xurtbûna deselata generalan re, Komara Îslamî û projeyên wê yên siyasî dikevin wê arasteyê ku Xameneyî û Ehmedînijad dixwazin.

Ji aliyek din ve Ehmedînijad hemû îmkanên abûrî û pîşesaziya welat jî xistine bin destê dezgehên girêdayî bi Sipaha Pasdaran û milîtşên Besîc re. Ji bazirganî û kirîn-firotina bi derve re bigre heya pîşesaziya maşîn û hwd serhevsarê abûriye welat bi awayekê digehe destê wan hêzan, ku bi xwe her du jî raste rast girêdayî serokê olî, Elî Xameneyî ve ne. Xurt kirina bingeha abûriye Sipahê Pasdaran, ew hêz kiriye hevtayê Bazarê, ku xwediyê abûriya kilasîke welat e û di dîroka siyasiye Îranê de, her demê hêzek xwedî bandor bûye.

Bihevre girêdana abûrî û hêza leşkerî, Komara Îslamî ji dîktatoriyên leşkerî ku di dîrokê de weke rêjîmên autoriter tên nas kirin cuda dike û dixe rêza sîstemek bi tewayî totalîter ku kontrola hemû warên jiyana civakê girtiye destê xwe. Ji hêza leşkerî û abûrî bi der, emrazê sêyemîn ji bo xurtkirina deselata totalîter, sîstema perwerdeyê ye ku niha guhertina wê di rojeva Ehmedînjiad û Xameneyî de ye. Her çend ku sîstema perwerdeya Îranê ne di dema şahitiya Mihemed Riza Şah û ne jî piştî hatine ser kar a Komara Îslamî, tu gav sîstemek serbixwe û zanistî nebûye, lê xuya ye ku Xameneyî û Ehmedînijad ji ya ku heyî jî kêmtir ji xelkê Îranê re rewa dibînin. Ji salên yekê ye xwendingeha seretayî ve bigre heya dîplomê, hemû astên xwendinê li Îranê bi eqlaniyeta paşvemayî ya Komara Îslamî hatine amade kirin, ku xwendinê dike emrazê îdeolojiya hişajoye xwe.

Pirojeya guhertina bingeha xwendina bilind li zankoyan û guherîna babetên zanista Civaknasiyê jî hema di wê çarçoveyê de divê bê temaşe kirin. Piştî ku Xameneyî nerazîbûna xwe ji naveroka babetên xwendina civaknasiyê nîşan da, şêvirmend û karbidestên nêzîk ji Ehmedînijad bi micidî ev mijar xistin rojeva Wizareta Perweredya rêjîmê û niha li ser pilana guhertina xwendinê kar dikin. Naveroka xwendina ku ji bingeha xwe ve tu derfeta vebûn û têkilî bi navendên zanistiye cîhana vekirî re nebû, bi pilana nû hê tê dorteng kirin û dikeve xizmet îdeolojiya hişkero ya Komara Îslamî. Gotinek berê heye dibêje: ”Ji esla xwe hin gul bû, çû ber baranê şilomil bû!”.

Di mijara bikaranîna dîn weke emrazê siyasetê de jî, Ehmedînijad û Xameneyî ji Xumeynî fêr bûne ku dema mesilheta rêjîmê xwest, êdî pîvan û prenssîpên olî binpê bikin u pîvanên rêjîmê bixin rojevê. Ev mijar di pêwendiyên nivîskiye di navbera Xumeynî û Xameneyî de, sala berî mirina Xumeynî, dema ku Xameneyî hê Serokkomar bû xuya dike ku niha di dukomentên parastiyê rêjîmê de hatiye parastin. Xumeynî li ser wê baweriyê bû ku hukm û fermana Welî Feqîh ku serokê bilinde olî yê rêjîmê ye, ji ehkamên şerîetê û ji pîvanên olî bilindtirin û bi fetwaya Welî Feqîh, pîvanên dînî tên guhertin.

Xuya ye ku niha berjewendiya rêjîmê di wê yekê de ye ku pîvanên ku Xumeynî ji Komara Îslamî re danîbûn bên guhertin. Di wê çarçoveyê de ye ku Îro ”Koriş” weke Paşayê Adil û Menşûra Koriş weke bingeha ”Edaletê” tê nasandin û Ehmedînijad di hember de serê xwe ditavîne. Projeya zêdegavî û mezinîxwazî ya Ehmedînijad û Xameneyî îro pêwîstî bi emrazek nû heye heya bikare ciyê xwe bigre. Ev emrazê nû, xurt kirina bingeha nasyonalîstî di çarçoveya olî de ye. Di wê pêvajoyê de û ji bo ku ev emraz bikaribe bi yekcarî bikeve xizmet projeya siyasiye Ehmedînijad de, pêwîstî bi serekaniyek cuda heye ku temenê siyaseta Ehmedîjinad dirêj bike. Di wê çarçoveyê de vegera ji bo nasyonalîzma Îranî dikare bibe alîkar.

# Qutabiyekî Bê Mînak, Rêberekî Jêhatî



**Keyhan Yûsifî**

Ger di serdemên berê de, çemka "rêberiyê" tenê di qorixa qehemanan de bû, niha guhertinên cîhanî ev yeka derxistiye holê ku şiyana rêberîkirinê, serbixwe ji çandan, şonasên netewî û sînorên coxrafiyayî di cewher û hundurê her kesî/ê de heye. Civaka mirovî a îro li pey wan rêberan de digerre ku bi kiryar û di piratîk de (nek bi qise û peyv) pirsan çareser bikin. "Rêberên cîhana îro ew kes in ku berpirsatiya serdemê jiyana xwe heya astê ku bibe, qebûl dikin. Yanî xwe li hemberî ew qisên ku dikin û ew karên ku encam didin, berpirsiyar dizanin". (Kilmins û Mayir 1987). Dema bas ji kesayetî û îlîtên siyasî tê kirin, bona nirxandina kiriyar û asta serkevtina wan, divêt zirûfa şûn û demê were liberçavgirtin.

Baskirin ji çawanî, pêgeh û rola rêberên siyasî û nemaze rêberên bizavên şoreşvan û bo mînak bizava azadîxwazane a gelê Kurd û nirxandina cih û rola wan li ser pêvajoya xebat û bicîgihandina erkên xwe û bandorxistin li ser civakê, bêşik girêdayî ye bi du fakterên girîng ên şûn û demê. Lewra dema ku li ser rêberekî diaxivin û kiryarên wî dinirxînîn û analîz dikin, bona wê ku vekolîn û nirxandina me zanistî û qahîm bi lojîk û metoda eqlanî û hizrî be, divê bi liberçavgirtina zirûfa wê demê û wekî xwe riftar pêre bihê kirin.

65 sal xebata Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, dîrokek e pirr ji ewroz û nişîv û bo ser çend qonaxên cuda cuda de parve dibe, ku di her şûn û demek taybetî de (qonaxek) de, her rêberek erkek taybetî dikeve stû û bona cîbicîkirina vê erkê, xincî taybetmendiyên takekesî ên rêber bi xwe, herwiha bikaranîna şêwaz (styl) ekî bicî û kêrhatî hewceye ku bersivderê wê qonaxê be.

Ger erkê Pêşewayê nemir avakirin û çêkirina xîm û bingeha xebat û partiyê bû, piştî dardarkirina wî û hiloşandina Komarê, bizava mafxwazane a gelê Kurd tûşî jarî, lawazî û bêserûberiyê tê û di wan salan de nebûna rêberekî bişiyan ku bikare hêza berbilav di çarçoveya pêkhateyek bihêz de rêk bixe, tê hest kirin. Bi şahidiya dîrokê, Dr. Qasimlo ew rêbere bû ku ew valahî pirr kir û erkê xwe bi awayek herî baş bicî gihand. Her wek me li serê jî îşare pê kir her qonaxek xwediyê hinek taybetmendiyan e, nemaze bo saziyekê ku bixwaze pêvajoya zeman, wî/ê tûşî asteng û jinavçûnê neke.

Qonaxa piştî şehîdkirina Dr. Qasimlo ji bo PDK Îranê û bizava azadîxwazane a gelê Kurd di Kurdistana Îranê de qonaxek taybetî û cudatir bû ku hewcehî bi nirxandin û analîzek hûr û helwest û kiryarek taybetî bû. Erkek ku li vir dikeve ser milê rêberên Partiyê û rêberê bişiyan yê wê demê Dr. Seîd, erkek taybetî û cuda bû.

Şerê Îran û Îraqê bidawî bûye, rejîmê hêzên xwe bona qirkirina hêzên opozîsiyonê teyar kiriye, partî û pêşmerge ji gund û bajaran hatine veqetandin, xem û kovana mezin a şehîdbûna Dr. Qasimlo per û baskên xwe bi de ser partiyê kişandiye, bêhîvîtî dixwaze per û baskên xwe bikişîne ser partiyê û zirûfek dijwar ji bo partiyê pêk were...



Herçend ku kesayetiyên bişiyan yan ew rêberên ku bi terzekê tevlî efsaneyan dibin, şûna wan bitewahî nahê tejî kirin, lê ger rêber erkê perwerdekirinê bi başî encam dabe, pêrew û qutabiyên wî/ê rêberî dikarin bibin domkerê rêya wan û ew pêvajo û bizava ku wî/ê pêşengiya wê dikir, ber bi pêş bimeşînin. Lewma qutabiyekî bişiyan ê mekteba partî û Qasimlo, piştî şehîdbûna rêber û mamostayê xwe, bi dilekî pirr ji xwîn û baweriyek bihêz ve bi pêşmerge û xelkê radigihîne: **"Dr. Qasimlo hatiye şehdîkirin, lê şoreş berdewam e, rêya mamostayê mezin dê bidome..."**

Ger Dr. Qasimlo xwediyê hizr û teoriya nû ji bo partiyê bû, eva Dr.Seîd bû ku wekî şirovekarê wan teoriyan û cîbicîkirina wan hizran di partiyê de rol lîst. Bêşik armanc ji terorkirina Dr. Qasimlo sekinandina pêvajoya xebatê û jinavbirina pêkhateya partiyê bû. Lewra piştî wê tirajîdiyê, sekrerterê wê demê yê partiyê û rêberê bizavê, Dr. Seîd ji armanca rejîmê têgihîştibû û bi başî ji ew erkê ku ketibû stûyê wî, agadar bû.

Ji aliyekê ve hewce bû ku pêşî ji êrîş û gefxwarinên rejîmê were girtin ku vê carê cuda ji êrîşên rasterast ên leşkerî, şêwazên din jî ji xwe re girtibû, şêwazên weke (terorkirina rêberên bizavê û kadro û pêşmergeyan, şandina sîxor û xwefiroşan bo nava partiyê û...) lewra zirûfa wê deme, helwest û kiryarên taybet bi xwe dixwast ku di kongirya 9 a partiyê de û di dema sekreteriya Dr. Seîd de giringî û, hewcehiya avakirina organek dine partiyê bi navê komîteya ewlehiyê, dikeve berbas û tê pejirandin.

Yekî din ji karên herî girîng ên Dr. Seîd bihadan bi hêza ciwanan di nava şoreşê de bû. Her lewra di kongireya 9'an de, navendek bi navê komîteya perwerdehiyê ava dike ku ew jî bo perwerdekirin û pêgihandina ciwan û kadroyên kêrhatî û bişiyan bo pêşerojê bû.

Lê ewa ku navê Dr. Seîdê nemir di nava refa rêberên lêhatî û bişiyan ên bizava azadîxwazane a gelê Kurd û Partiya Demokrat de bo herdem cîgir dike, berheqiya rêberayetiya Dr. Seîd bal endamên Partiyê bû ku heta dujmin jî ji mezinî û kesayetiya vî rêberî bi başî têgihîştibûn, lewra ew pîlan jêre darêtin û ew jî şehîd kirin.

Berheqî û rewayiya rêberekê ku dibe hêz û desthilatek ji bo wî/ê rêberê/î di pêxema cîbicîkirina erk û gihîştin bi armancan, de girêdayî ye bi desthilatên takekesî ên rêber (yan birêveberekê) di saziyekê de, ku ew jî pêkhatiye ji desthilata pisporî û lêzanîn û desthilata çavkanîbûn û berheqiyê. Desthilta pisporî û şarezayî, bi vê wateyê ye ku divêt rêber xwediyê beşek ji ezmûn, zanist û kêrhatîbûnê be ku mirovên din bi qasî wî xwediyê wan taybetmendiyan nebin, ku pêka zirûfa wê demê a partî û Kurdistanê, Dr. Seîd xwediyê ew taybetmendiyan bû û herwiha desthilata çavkanîbûnê jî bi vê wateyê ye ku endam û heval hinek ji taybetmendiyên weke yekrengî, destpakî û razdarî yê bi rêberên xwe pêwend bidin ku rêber bi vî awayî dibe xwediyê desthilata çavkanîbûnê yan berheqiyê. Ewa ku herdem derheq Dr. Seîd tê gotin û taybetmendiyekî cudanekirî a kesayetiya vî rêberî ye, rûrastî, destpakî û pêdagiriya wî li ser karûbarên partiyê bû, lewma navbirî dibe xweşteviyê giştaliyan û diçe nava dilê hemûyan de.

Dr. Seîd bi pêşerojê pirr hêvîdar bû, lewra bi qewimîna bûyera dilêş a şehîdbûna Dr. Qasimlo, lerzîn neketê çokên wî û gavên xwe bona domandina rêbaza wî rêberê mezin qahîmtir kir. Çimku ew bawermend bû ku xebat û tekoşîn bo gihîştin bi hêvî û armancan, bi wateya serkevtinê ye, herçend ger ku zirûf û sedemên curbicur rê ji gihîştin bi armancan bigire. Her weke "Êrnist Himîngoy", nivîskarê binavûdeng yê Amerîkayî dibêje: " Mirov bo vê hindê nehatiye afirandin ku bireve".

## Hevkariya 300 Milyon Dularî bi Girava Komorê




Bi navê hevfikriya Îran û Afrîqayê, Komara Îslamî a Îranê li Girava dûrketî ya Komorê 300 milyon dular sermaye daniye.

Jiber ku ew girava biçûk cihê sermiyandanînê nine, armanca Komara Îslamî tenê xurtkirina pêgeha xwe û pêşvebirina armancên mirar yên xwe ye di wî welatê biçûk û welatên din ên Afrîqayî de.

Balyozê Komorê li Tehranê gotiye ku Îran û Komor hevxwîn in, çimku di sedsalên dehan de yekemîn xelkên ku hatine Komorê, Şîrazî bûne, bi jiberçavgirtina wê derbazbûyê dibe bêjin ku peywendiyên Îran û Komorê pêtir ji peywendiyên siyasî ne.

Bi gotina Elmerzoqî, balyozê Komorê li Tehranê, Serokkomarê Komorê xwendina xwe li bajarê Qumê de qedandiye û hatine serkara wî di Komorê de, di peywendiyên wî welatî li gel Îranê de tiştek heyatî bûye.

Xêncî wê yekê komîteya Îmdad a Îmam di wê girava biçûk de çalak e. Herweha dana îmkanatan bi 200 hezar kesan ku 1 ji 4 a nifûsa wî welatî ye di demekê de ye ku bi milyonan xelkê Îranê di hejarî û birçîbûne de dijîn.

## Ban Kî Mûn Xwazyarê Liberçavgirtina Mafên Mirovan Di Îranê De Bû



Roja 19'ê Îlona 2010'an, Sekreterê Giştî ê Rêxistina NY di hevdîtinekê de tevî Mehmûd Ehmedînijad li bajarê "New york"ê, li ser hewceiya liberçavgirtina mafên mirovan li Îranê tekez kir.

Li gor rapora Nûçegihaniya "Feranse" "Ban Kî Mûn" di vê hevdîtinê de pêdagirî li ser giringiya rêzgirtin ji mafên bingehî ên siyasî û sivîl di îranê de kiriye.

Tê zanîn, Mehmûd Ehmedînijad bo beşdarîkirin di civîna giştî a NY çûye bajarê "New york"ê.

"Ban Kî mûn" di beşeke din a hevdîtina xwe de tevî Serok Komarê Îranê, di warê çalakiyên navikî yên rejîmê de xwazyarê hevkarîkirina pozetîv a rejîma Îranê bi civaka cîhanî bû.

## Rojev Referandom pêngavek ber bi vebûna demokrasiyê

**Arîn**

Rojeva siyasî a Tirkiyê niha mijûlê referandom û encamên rapirsî li ser Yasayekê ye ku li 12'ê Îlonê de dawî bi temenê 30 salî yê wê ku berhema darbeya leşkirî ya Kenan Ewren li sala 1980'î Zayînî de bû, anî. Ji wê demê ve heya niha nizîkî 20 caran hin ji xalên Yasaya Bingehîn a Tirkiyê hatine guhertin, lê li piratîk de li dor pirsa kurd tu xalek pozetîv yan guherînek dîrokî nehatiye encamdayîn ku pênase û teibîr ji neteweya kurd û îtiraf bi mafên wê bike. Berevaj ramana zal bi ser destûrê de her li cihê xwe de dima ku cihwar û şûnwarên wê jî xwe li haşa û înkara gelê kurd, kavilkirina 4 hezar gund, koçberbûna çend milyon kurdên bêguneh, zaf cinayet û tirajîdyayên nemirovane û hovane û berdewamiya siyaseta asmîlasiyonê de dibîne.

Herweha heya niha jî 6 referandom li Tirkiyê de birêveçûne ku ya dawîn çend rojan berî niha anku li 12'ê Îlonê de kete ber ra û dîtina xelkê û biryar li ser hat dayîn ku bi zorahiya dengan anku %58 "Belê" û %42 "Na" biserket.

Paketa pêşniyarkirî a reformên Yasayî ji bo referandomê ku ji 26 madeyan pêkhatibû, zêdetir kêmkirina desthilata Arteşê, Dadgeha Leşkirî, mafên zêdetir ji bo jinan, zarokan, kedkaran û sendîkayan bi armanc û li xwe de cih dabû, lê xwe ji pirsên sereke yên Tirkiyê herwekî heya niha çend caran berpirsiyarên payebilind jî îtiraf pê kirine, parast û ew xal û madeyên destûra nedemokratîk ku sedema ferq û cudahî, şer û tund û tûjî û bêmafiya gelên netirk li Tirkiyê de ne, her li cihê xwe de mane, lê reform û guhertina wan 26 madeyan jî bo pêşketina civakê û geşekirina demokrasiyê li Tirkiyê de pir girîng û gavek bibandor û erênî ye li hember reformên zêdetir da.

Bi watayek din ger em bi nêrîn û dîtinek kurdane ve mêzeyî vê paketa destûrî bikin, tu tiştek weke netewe ji bo kurdan têde naxuye, lê weke hemwelatî qazanc ji bo hemû takên Tirkiyê heye û kurd jî dikare him ji vê derfetê li tekoşîna sivîl û civakî a xwe de mifahê jê bistîne û him jî berdewam be li ser xebata xwe ji bo deskevtên zêdetir. Lewre her reform û guhertinek ber bi pêşve pozetîv e û divêt piştevanî jê bihê kirin. Vêca çi sedem, armanc yan pîlanek AKP'ê li pişt van guhertinan ve hebe, ew li cihê xwe de, lê bi giştî armanc dûrketin ji kemalîst û darbekaran e û renge heya qasekê jî pêşerojek rohn ji bo kurdan li pey re hebe. Nemaze ger merema partiya desthilatdar bihêz kirina pêgeha xwe jî be, dîsan jî em dikarin bêjin ji dewletên beriya xwe xirabtir nine, lewre bi hiloşîna hêdî hêdî a dîwarê desthilata siyasî û leşkirî a tepeskaraneya wan, kurd jî dikarin dengê xwe bilindtir bikin û destkevtên zêdetir bidest bixin, lewre pirose demokratîk e û




ji bo demokratîzekirina Tirkiyê wek gavek erênî tê mêze kirin, lê eva jî nabe bihê veşartin ku AKP li bin zext û givaşên opozîsyon û hejmoniya Arteşê bi ser hikûmet û desthilata welat de karî vê guhertinê ser bixe û ger kêm be jî, li jêr tesîr û karîgeriya eqliyetek firçikgirtî ji dîktatorî û haşakirin ji gelan de, li rastaya kêmrengkirina siyaseta kemalîstî de ye, lewre gavek binirx û serketinek nû ye.

Li hemberî vê referandomê de sê dîtin û helwestên cuda hebûn ku li hemberî hev de ketibûne rikebaranê.

Yekem: Helwesta "Belê" bû ku AKP û parek berçav ji rewşenbîr, siyasetvan û kesatiyan piştgirî û gazî jêre dikirin û her doma piroseya "Vebûna demokratîk" bû ku heya qasekê taboya kemalîzmê pê şikand.

Duyem: Helwesta "Na" bû ku partiyên netewperest û faşîst yên Tirkiyê weke CHP û MHP'ê pêşengiya vê dikirin û xwazyarê berdewamî û domandina siyaset û yasayên berê ne û li dijî her terze reform û guhertinekê ne ku ne tenê mafê kurdan pê misoger nebe, belkî rewşa berê jî lawaztir neke.

Sêyem: Helwesta "Baykot"ê bû ku beşek berbiçav ji kurdên bakûr bi pêşengiya BDP û PKK'ê piştgirî jê dikirin û salên dûr û dirêj in ku li pêxema azadî û mafê çarenivîsê de xebata xwe dimeşînin û xwazyarê destûrek nû û demokratîk in ku pênase û teibîr ji hemû pêkhateyên netewî û mesebî yên Tirkiyê bike. Lê ji ber vê ku dîtin û nêrînên wan ji hêla desthilatê ve giringî jêre nehat dayîn, wan jî helwestek cudatir ji wan girt û ne hêla AKP'ê û ne jî hêla CHP û MHP'ê girtin û siyasetek cudatir ya baykotê girtine ber xwe.

Bi giştî ev referandoma li Tirkiyê de heya qasekê bîr û hizra kemalîstî kal û bêdeng kir û nîşan da ku xincî partiya desthilatdar a AKP'ê tu hêzên din li bakûr de pêgehek bi vî awayî ninin.

Em dikarin bibêjin ku serxistina referandomê li rastî de parek vedigere bo dengên ku li Kurdistana Tirkiyê bi van guhertinên Yasaya Bingehîn hatin dayîn, lewma li cih de ye ku partiya desthiltdar jî vê rastiyê berçav bigre û li gor yasaya nû delîve û derfetekê ji bo kurdan pêk bîne ku bikare pitir ji niha û bi eşkereyî û bê nîgeranî ji pêşerojê, daxwazên sereke û bingehîn yên xwe li Tirkiyê de bîne ziman û li heman demê de jî rêxweşker be bo misoger bûna wan daxwazên rewa ku kurdan li vî welatî de hene. Herweha em hêvîdar in ku xûşk û birayên me yên kurd li bakûrê kurdistanê bi her helwesta ku li vê referandomê de hebûne, ji vê vebûnê ku bi qazanca geşekirina demokarsiyê ye, ji bo anîne berbas û pîvana pêvajoya dabînbûna mafên netewî mifahê bistînin û ji her derfet û delîveyekê bona gihîştin bi mafên xwe mifahê bistînin.

## Şehîd Humayon Erdelan



- Sala 1336 a Rojî, di malbata mezin a Erdelaniyan li bajarê Seqizê, çavên xwe ji dinyayê vekirin.
- Xwendina destpêkî û navendî a xwe li bajarê Seqizê bidawî anî.
- Sala 1356 a Rojî li zanîngeha Senetî a Tehranê hat wergirtin.
- Sala 1357 a Rojî tevlî refên Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bû.
- Sala 1360 a Rojî di Kongireya 5 a partiyê de, weke Şêvirmendê Komîteya Navendî û di Kongireya 6 li sala 1366 a Rojî de weke endamê Komîteya Navendî hat hilbijartin.

- Berpirsatiyên wî: Cîgirê Berpirsê Komîte Şaristana Serdeştê, Komîteya Mîrawê, berpirsê kar û barên teşkîlatî ên Deftera Siyasî a hejmar yek, endamê nawenda Ajwan li bajarê Sine, berpirsê Komîte şaristana Seqizê, berpirsê Nexweşxaneya Partiyê.
- Berpirsatiya dawîn a berî şehîdbûnê: Nûnerê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê li welatê Almaniya.

Berwar 26 ê Xermanana 1371 a Rojî li Restorana Mîkonosê li bajarê Birlînê de hat şehîdkirin.

## Şehîd Nûrî Dêhkurdî



Sala 1325 a Rojî li bajarê "Şehri Kurd" a Parêzgeha Çarmihala Bextiyarî ji dayîk bû.

- Di nîveya dehsalên 1340 a Rojî, çû bo Ewropa û li zanîngeha "Liyon" a Otrîşê dirêjî bi xwendinê da.
- Weke xwendekarek tevlî saziya Konfedrasyona cîhanî a xwendekaran bû û di kongireya sala 1354 a Rojî a wê konfedrasiyonê de, weke Sekreterê wê saziyê hat hilbijartin.
- Piştî şoreşa gelên Îranê li sala 1357 a Rojî de, bo dirêjîdan bi xebatê, vegeriya Îranê.
- Her li Îranê ligel hejmarek ji hevalên xwe saziya "Yekîtiya Çep" pêk anî.

Yek ji damezrînerên "Şêvra Yekgirtî a Çep" û berpirsê "Peyama Azadî", belavoka wê şêwrê bû.

- Sala 1367 a Rojî hate Kurdistanê û peywendiyeke kûr ligel Dr. Qasimlo û Dr. Şerefkendî û bi giştî Partiya Demokrat û bizava Kurd girêda.
- Sala 1363 a Rojî çû bo Birlîna Almanya yê û li wir alîgiriyek zaf ji tevgera Kurdistanê dikir.

Bervar 26 ê Xermanana 1371 a Rojî, di restorana Mîkonosê de hat şehîdkirin

## Şehîd Fetah Ebdulî



- Sala 1340 a Rojî li gundê "Weznê" a devera Sindosa bajarê Nexedê di malbateke zehmetkêş de ji dayîk bû.
- Qonaxên destpêkî û navendî yên xwendina xwe li Weznê û bajarê Nexedê de bidawî kir.
- Piştî şoreşa gelên Îranê li sala 1357 Rojî, bûye endamê Yekitiya Ciwanên Demokrat ên Kurdistana Îranê.
- Berpirsatiyên wî: Endamê heyeta birêveberî a Komîte şaristana Nexedê, Berpirsê Komîte şaristana Nexedê, di Kongireya 6 a Partiya Demokrat de li sala 1362 a Rojî de bûye endamê Cîgirê Komîteya Nawendî û her di wê salê de bi berpirsê Komîte şaristana Sine hat diyarîkirin, di Kongireya 7 a partiyê de bûye endamê Komîteya Navendî û her di wê salê de bûye berpirsê Melbenda Yek a Başûrê Kurdistana Îranê, piştre bi berpirsê Komîteşaristana Serdeştê hat diyarîkirin. Di kongireyên 8 û 9'ê di salên 1366 û 1370 a Rojî de dîsan bi endamê Komîteya Navendî hat hilbijartin.
- Piştî karesata Viyenê di 22 ê Pûşpera 1368 a Rojî de, weke berpirsê Peywendiyên
- Partiyê li dervey welat hat diyarîkirin.
- Di bervara 26ê Xermanana 1371 a Rojî di restorana Mîkonosê de hat şehîdkirin.

---

**Hîlarî Kilînton:**

## Amerîka ji desthilata leşkiriyan di Îranê de nîgeran e



Wezîra Karê Derve ya Amerîkayê gotibû ku Îran ber bi sîstemeke dîktatoriya nîzamî ve diçe û xelkê Îranê dibe li hember zêdebûna desthilata nîzamiyan di Îranê de, nerazîbûna xwe nîşan bidin. Herweha zêde kiribû ku Amerîka ji desthilata nîzamiyan di Îranê de nîgeran e.

Wê herweha got ku Amerîka dixwaze hevkariya xelkê Îranê bike, lê naxwaze astengek be li ser riya wan. Ji aliyek din Ehmedînijad di hevdîtina xwe ya bi BBC a Amerîkayê re got: Şîreta min bo wê jinê ev e ku berî her tiştî bila bixwîne, hizir bike û piştre bibêje. Herweha got ku, ew îdîa pirsgirêkê careser nake, ger fikriyetek nû di Amerîkayê de derketiye holê ku dewrana Bûş derbaz bike, pêwîste şêwaza karên xwe ên berê xilas bike û şîrove bike ku li Îraq û Efxanistanê çi dike. Ehmedînijad, tehrîmên ser Îranê bi bêmana dan zanîn û got: Amerîka xwe tehrîm kiriye û ajansa Navnetewî a Enerjiyê di perwendeya Îranê de yasa berçav negirtiye û nûnerê Ajansê rêsayên peywendîdar bi vekolînan binpê kir.

## Rê Û Resma 18'emîn Salvegera Terorkirina Dr. Sadiq Şerefkendî Li Welatê Norwejê Hat Lidarxistin

Roja 18'ê Îlona 2010'an, li welatê Norwejê rê û resma 18'emîn salvegera terorkirina nemirovane a şehîd Dr. Sadiq şerefkendî û hevalên wî bi destê terorîstên komara Îslamîa Îranê hat lidarxistin.

Ew rê û resm bi xwendina sirûda netewî a "Ey Reqîb" û deqîqeyek bêdengî bo rêzgirtin ji canê şehîdên kurd û Kurdistanê dest pêkir. Piştre peyama Komîteya Giştî a PDKÎ li welatê Norwejê hat xwendin.

Herweha gotarek li ser xebat û tekoşîna Dr. Sadiq Şerefkendî û çawanî û şêwazên xebata hevçerx a Kurd bi piştqahîmî bi ezmûna şehîdan bi giştî û şehîdên rêber, ji aliyê Ebdula Hiceb rŞêvirmendê Komîteya Navendî ya PDKÎ ve hat pêşkêşkirin. Paşan fîlmeke dekumentarî di derbarê jiyan û gotinên Dr. Sadiq de hat nîşandayîn.

Gotarek di jî di bin navê "Dr. Seîd wek xebatkarekî rewşenbîr" ji aliyê Birahîm Lacanî ve hat pêşkêşkirin.

Hêjayî gotinê ye, di vê rê û resmê de peyamên çend part û rêxistinên Kurdistanî hatin pêşkêşkirin ku ev in:

- Peyama komîteya hevbeş a hêzên Kurdistanî
- Peyama Komeleya Zehmetkêş ên Kurdistanê
- Peyama Yekîtiya Ciwanan, Jinan, Xwendekaran û komîteya giştî a Komeleya Kultûrî a Kurd
- Peyama Rêxistina Yarê Kurd
- Peyama Sazimana Xebat a Kurdistana Îranê
- Peyama partiya Komonîst a Kurdistanê.

# Sala nû a xwandinê û sîstema perwerdehiya Îranê



**Dara Natîq**

Hatina demsala payîzê, ceribîn û destpêkek nû ye di pêvajoya jiyana xwandekar û nemaze ew zarokên ku yekemîn sala destpêka xwandina xwe bi zewq û girnijînek tejî ji hevî û moralek evîngirtî ji hesret û xeyalên zarokatiyê dest pê dikin û bo cara yekemîn qonaxek nû a jiyana xwe li derveyî çarçoveya malbata xwe û tevî komek ji heval û mamostayên nû li ser bingeha hêvî û perwerdeyekî zanistî û îroyîn di pêxma paşerojek geştir û civakekî pêşketî de didomînin.

Lê mixabin di Îrana bin siya destihilata îdelojîk û zanistkuj a Komara Îslamî û bi hegera hebûna sîstemek perwerdehî a paşvero û dûr ji hemî pîwanekî standard a cîhanî û herwisan hebûna gelek arîşe û girêpêçkên bingehîn, xwendekar û ew zarokên ku yekemîn sala tevlî bûna wan bi karwanê zanistê ye, bi gelek asteng û moralek Hevêngirtî ji paşerojek nediyar û bêzarbûn ji domandina xwandinê re hevrîş dibin.

ji hemî kesekê re rohn û eşkere ye ku pêşkevtina her civak û neteweyekê girêdaye bi astê pêşkevtin û îroyîn bûna sîstema perwerde û elimandin û jêhelçûna asta hişyarî û zanistî a wê netewê yê. Ya xuya ye ku îro cîhan bi giştî di warê perwerde û fêrkirinê de li ser vê bawerê ye ku mifah wergirtin ji avayên perwerdehiya sunetî tiştek şaş e û nabe pêrewî jê bihê kirin. Jiber ku ger sîstema perwerde û elimandinê li gor pîvanên sitandard ên cîhanî ku bersivederê hez û hewcehiyên nifşa nû bin, nehên darêtin, dê bandorek nigetîv li ser astê hişyar bûna zanistî a civakê bi cî bihêle û civak han dê roj li pey rojê ji karwanê pêşkevtin û teknolojiyê pare bimîne.

Lê mixabin Komara Îslamî a zanistkuj di Îranê de, piştî bi desteve girtina desthilatê û bi merema parastina nizamê û di pêxema domandina siyasetên qirêj û mirovkuj ên xwe, sîstema sedsala navîn a di warê perwerde û fêrkirinê di Îranê de cihgîr kir û bîr û hizrên paremayî ên zal bi ser xwandingehên olî de, per û baskên xwe bi ser tevahiya sîstema perwerdehiya welêt de kêşa û naveroka pirtûkên dersî û sîstema fêrkirinê her di qonaxa herî destpêkî heya astê xwandina herî bilind di zanîngehan de, li gur berjewendî û îdelojiya taybet bi felsefeya parastina nizama dîktator a hakim hate guhartin. Nimûneya herî berçav a vê guhertinê daxistina zanko û derxistina mamosta û xwendekarên xwedîbîr û bawerên cuda bîr di zanîngehan de bû siyaseta derxistin û dûrxistina mamosta û xwandekarên azadixwaz di wan çend salên derbas bûyî de û nemaze di wan çend




heyvên borî de pêvajoyek bileztir û xurtir bi xwe ve girtiye ku bûye cihê nigeranî û bi lome bûna civaka xwedî zanist a cîhan û Îranê.

Herwisan avakirina "Besîc Danişamûzî" û şivra Îslamî a xwandigehan di Îranê de, bû bi fakterek bo zalkirina rewş û zirûfek eminyetî û serbazî û perwerde kirina caş û sîxorên taybet bi parastina nizamê di nava xwandingehan de.

Di heyamê şerê navbera Îran û Îraqê de bi dehan hizar xwendekarên kêmtemen ji aliyê karbidestên nizamê ve bo qada şer hatin hinartin, û kuştina hezaran zarokên temen 13 salî di wî şerî de jî weke şanazî û destkevtên herî bihagiran di xwandingehan de tên hesibandin û xwandekar hertim tên handan ji bo domandina rêbaza şehadetê. Anku xwendekar dibe bi awayekî mektebî heya astê xwe gorî kirinê piştevan û berevankarê îdelojiya deshilata zanistkuj û mirovkuj a rejîmê bin.

Fêrkirin û perwerdekirina bîrokeya mirindostî û kevneperestiyê di xwendingehan de, di rastî de netenê kiryarek biyom a rayedarên rejîmê ye, belkî sûçek mezin û bi enqest e li dijî mirovahiyê ku derbek bibandor li pêşkevtin û evlehiya civaka Îranê veşandiye. Nimûneya herî xuya û berçava di wî warî de, hinartina Komek ji xwendikarên wê dawiyê bo welatê Efxanistan û Pakistanê bo xwe teqandin di wan cihên taybet ku weke erkekî şereî ji aliyê karbidestên rejîmê ve bo wan hatibû destnîşan kirin. Bi berçav girtina rastiya han dixuye ku sîxorî û peredan bi nezamî û kevneşopiye yek ji sitûnên bingehîn ên sîstema perwerdehiyê di Îranê deye.

Ji aliyekî din ve jihevcuda kirina kiç û kuran di xwendingehan de, çavdêrî kirina xwendekar û rêveber û mamostayên xwendingehan ji aliyê dem û dezgehên sîxorî û tepeserkar yên rejîmê ve, desttêwerdan û çavdêrîkirin ji herêmên şexsî û şêwazên riftar û curê kinc jiber kirina xwendekaran li gor felsefeya navendên olî, belavbûna roj li roj zêdetir a madeyên hişber di xwendingehan de, nizmbûna astê naveroka pirtûkên dersî bi zanista îroyîn, arîşe û girêpêçkên weke, bêkarî û dehan diyardeyên biyom ên civakî ku berhema sîstema şaş a perwerdehiya nizama zanistkuj a Komara Îslamî a Îranê ye, derbekî mezin ji moral û îradeya zanistî a xwendekaran û nemaze civaka Îranê bi giştî daye.

Di çarçoveya nizam û sîstemek perwerdehî a han de, netewên netirs û kêmaniyên olî zêdetir xedir ji wan tê kirin. Pêka yasa û sîstema perwerdehiya Îranê netewên nefar û kêmaniyên olî mafê xwendin û nivîsînê bi zimanê zikmakî yê xwe ninin û zarokên netewên bindest û bi taybetî zarokên kurdan diviya her di yekem roja destpêkirina xwendinê bi zimanê Farsî û bi perwerdehiya olî a şîe meseb fêrî xwendinê bibin, ku ew çende jî di warê fêr bûn û têgehiştinê ve bandorek nigetiv li ser wan xwandekarane dadinêt û dibe hegera bezarbûna zarokan ji xwendigehane de bê ewa di hatekî de ku li gor esla 15 a zankoya bingehîn a Komara Îslamî xwendin û nivîsîn bi zimanê zikmakî azad e, lê mixabin rayedarên rejîmê çarçoveya meşandina pêvajoya siyaseta asimîle kirin û ji navbirina netewên nefars de nehêlan ku tu car esla han bihê piraktîze kirin.

Niha jî di gelek cihên Îranê bi taybetî li kurdistanê gor hewce îmkan û hewcehiyên xwendinê pêka sitandardên îroyîn bo xwendekar nehatine dabîn kirin. Di gelek gund û deverên Kurdistanê bi hegera nebûna xwendingehan, zarokên wan deverane ji xwendin û nivîsînê hatine bêpar kirin. Ew deverên ku ji sîxûr û kesên ser bi dezgehên evlehiyê welatê re tên dayîn, mixab in ji xwandekarên kurd re çinine û heta ew di hilbijartina rişteyên dersî de jî ne serbestin. Zulm û zor û cudahiya teknîkê û çandî û olî jî di xwendigehan de yek ji arîşeyên sereke yê xwendekarên kurd e.

Lê bili berçavgirtina tev wan rastiyane mirov digihîje vê encamê ku çareseriya xwe derbas kirin ji vê sîstema kevneperest di Îranê de, avakirina çarçaweyekî sekolar, zanistî û demokratîk e ku pêrewkirina hez û berjewendiyên hemî takekî civakê bi erkê desthilatê bizane û bo rizgar kirina mirovan ji nezanî û "xoref perestiyê" gavên hewe û micid bavêje. Di sîstemekî han de desthilata xwe bi qerdar û parek ji pêkhateya giştî a civakê dizane û li gor wê jî bo mehkûmkirina bingehên demokrasî û sekolarizmê, anku cihgîr kirina wan di civakê de û cihgîrkirina perwerdeyekî zanistî û mirovtewer ku bibe çareserek bo jinavbirina tev cudahiyan gavên pêdivî bavêje. Di heman demê de jî waneyên olî bihêle bo navendên taybet bi vê biyavê, biavayekê ku ayîn bi zorî bi ser tu kesî de nehê sepandin û ger kesek jî bi xwaze ku di wî warî de şitan fêr bibe dikare bi keyfa xwe li xwendingehên olî de xwe fêr biket ne di rêya sîstema perwerdehiya welêt de.

Sîstema perwerdehî heyîyekî giştî ye û deshilatê mafê vê çendê tunine ku vê heyîyê bo geşepêdan bi olekî taybetî bikar bîne ku tu qazancek bo pêşkevtin û modêrnîze kirina civakê nine.

# Ji Her Çar Zewacan Telaqek

**Kewêzer**

Pirsa telaqê di Îranê de bi lezek zaf, xurt dibe û metirsiyek micid dixe ser riya pêşeroja civaka wî welatî. Li ser pirsa han şîroveyên zaf hatine kirin û zaf hewlên mirovhezane ji aliyê navend û pêkhatiyên civakî ên nedewletî ve hatine encam dan û di qonaxa piraktîkî de seba guhnedan û xemsariya berpirsên rejîmê, ew hewlên han tûşî astengan dibin û ew pêvajo tê sekinandin û hewlên wan mirovhezan nek he tenê bêakam dimînin, belkî di encamê de ew bi tometên cur bi cur tên tawanbarkirin û dikevin bin givaşan de.

Encama pêvajoya vî karî, li gor nûçeyeke "Iranpressnews" ê,/ welatê Îranê gihandiye pileya çarim a welatên cîhanê, di warê ji hev veqetiyana jin û mêran.

Herçend telaq di her civakekê de pirsek siroştî ye, lê zêdebûna telaqê di nav du çandên ji hev cuda û di nav du civakên di warê pêşketinên fikrî, madî û manewî de bi awayek eşkere ji hev dûr, weke civaka Îranê û welatên Ewropayî, bi tu awayekê wek hev nahê şirovekirin.

Di civakeke pêşketî û mudern de ku rêjeya telaqê gelek e, lê dema ku vekolîn tên kirin, derdikeve ku piraniya wan li ser bingeha xweşiya xwe û razîbûna dualî û li gor çanda xwe, û guhertin di jiyana xwe de ye. Lê ew çand û diyarde bo civakeke paremayî û sunetî a weke civaka Îranê ku çavgirtî gavên xwe bi mebesta guhertin û pêşketinê ber bi pêş davêje, bi bê Gavdêrî û rênimayiyên berpirsane ên hikumetî û hewildan bo rasterêkirina civakê di pêvajoya pêşketinê de, ger bihê berhevdan tevî civakek mudern û pêşketî, bo mînak welateke mîna “Spaniya” ku li ser asta cîhanê di warê telaqê de di pileya yekimîn de ye, cudahiyên zaf hene.

Di civakeke sunetî û mêrserdest de seba desthilatdariya "mutleq" a mêr di malê de û girêdayîbûna jinan bi taybetî di warê madî ve bi mêran ve, û pejirandina wê rewş û çandê ji aliyê jinan, bûyera telaqê pirr kêm e. Lê ewa ku di vir de dibe pirsa sereke ev e ku heya niha jî civaka Îranê wek civakek paremayî û sunetî tê xûyakirin û şîweyên birêvebiriya malbatan bi awayek mêrserdestî tê meşandin, lê çima amara telaqê di wî welatî de li gor nîzama birêvebiriya civakî di Îranê de, ewqas zêde bûye û bilez ber bi pêş de diherike?

Ger sedemên wê pêvajoya metirsîdar bihêne şîrovekirin, em digihîjin vê encamê ku bi tu awayekê mirov nikare desthilatê bi tawanbarê sereke nezane.

Li gor vekolînên wê dawiyê ên ku ji aliyê saziyên çalak di vî warî de tên encamdan, civaka Îranê bi ser sê qatan de tê parvekirin: qata nizim (hejar), qata navendî û qata bilind (dewlemend). Ew digîjin wê encamê ku pêtirîn rêjeya telaqê di nav qata navendî de rû dide, sedema wê yekê jî ev e ku qata nizim (hejar) seba neçariya tewaw ya jinan û xwe girêdan bi mêr ve ji bo ku bijî û herweha seba vê ku di wê qata nizm a civakê de telaq bi pirsek “hêsiyetî” Şref û abirû” û kiryarek qirêj tê hesibandin, kêmtir bûyera telaqê di vê qata civakê de rû dide.

Qata bilind (dewlemend) seba hebûna îmkanatên refahî û dabînbûna hewcehiyên madî û manewî, kêmtir tûşî pirsgirêkan dibin û di wê qata civakê de jî ew bûyer kêmtir tê xûyakirin.

Lê di qata navendî de ku hem girêdayiya jin bi mêr ve kêmtir e û hem piraniya mêrên wan malbatan yan kar û kasibiyek azad ji xwe re hene yan karmend û xwedî pîşe ne, di dema kêmbûn yan nedana moçeyên karmendiyê yan jî kirîza bêkariyê û tengkirina derfetên pîşeyên azad ji xelkê re ji aliyê rejîm Komara Îslamî ve ku niha seranserî welatê Îranê dagirtiye û asta jiyana wê qata civakê nizimtir dike, û herweha seba vê ku siroştî ye ku pirsgirêk di hundirî malbatan de ser hildidin, pirraniya bûyera telaqê di wê qata civakê de rû dide. Diyare di nav jinan de pîşeyê wan ew pirs di nav jinan de berevajî kiriye. Eger jin bi du deste bihên parvekirin, jinên karmend û xwedî kar herweha jinên maldar, li gor ragihandinên wan navendên nefermî pirraniya telaqan di nav desteya jinên maldar de tê rûdan. Dema ku tê dîtin




ji sedî 25 jin di Îranê de tên telaqdan herweha pirraniya wan jî di qata nawendî û maldar in, ew yek derdikeve ku hejmara jinên xwedî pîşe û kar çiqas kêm in û çiqas bandorek xerab dixe ser zêdebûna pirsa han.

Eger li gor wan şîroveyan encamgîrî bihê kirin, derdikeve ku civaka Îranê civakek lawaz, nexweş û tevlîhev e. 25 ji sedî xelkê Îranê ji jin û mêrên cudabûyî hejmarek zaf ji xelkê moral şikestî û ew kes in ku jiyan ji wan re buhayê rastî yê xwe nîşan nedaye û 1 ji 4 a civakê tûşî nexweşiya hundirî dike.

Mafek rewa û xwastek di cihê xwe de ye ku ew erkê han bikeve ser milên hikûmetê ku ji bo derxistin û paqijkirina wan pirsan ji kirîzên ku îro têketine û civaka Îranê ber bi rewşek metirsîdar û çarenivîsek nediyar dibe, hewl bihê dan ku di pêxema pêşxistina civakê de riyên zanistî li gor jiyana îroyîn a cîhanê bihên danîn û bixin pêşberî xelkê. Lê dema ku bo hemû aliyekê li hundir a û dervey wî welatî eyan bûye ku bi hebûna wê rejîma dijî mirovî bi taybetî dijî jin, rewşa xelkê bi giştî û rewşa civakî seba wê yekê ku nîva civakê jin in bi taybetî nek her ji vê yekê baştir nabe, belkî roj bi roj xelk dikeve qopiyên kûr ên destçêkiryên wê rejîma şûm de Tenê riya ku ji xelkê re dimîne ev e ku bo xwe fikrek ji halê xwe bikin û ji bo nehiştina rejîma cehl û nezaniyê ji hewlên micid sistiyê nekin.

# Bi beşdariya zarokên her Çar Parçeyên Kurdistanê Dûyemîn festîvala havînî ya Navenda Nêrgiz birêveçû

Dûyemîn festîvala havînî a Navenda Nêrgiz di rojên 22 – 23’ ê Xermanana îsal bi beşdariya zarokên herçar parçeyên Kurdistanê, di hola giştî a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê de birêve çû. Festîvala han ji aliyê Navenda Nêrgiz û bi piştevaniya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bi beşdariya çalakane a zarokên Bakûr, Başûr, Rojava û Rojhilata Kurdistanê û dinav xweşî û şahiya zarokan de bi pêşkêşkirina dehan berhemên hunerî ên cuda cuda, dawî bi karê xwe anî.

Di rê û resma dawî a vê festîvalê de, rêzdar Mistefa Hicrî, Serkreterê Giştî yê PDK Îranê, çend gotinek pêşkêş bi zarokên hemû Kurdistanê û beşdarbûyên festîvalê kir. Hêjayî gotinê ye ku eve cara yekimîn e di dîroka zarokên herçar parçeyên Kurdistanê de, ew di weha festîvalekê de li dora hev dicivin.

Di beşa dawî a festîvalê de, serkevtiyên beşên cur bi cur ên wê festîvalê hatin nasandin û bi awayek sembolîk, xelat bi ser wan de hat dabeşkirin.



# Rondikên bûn hevalên min



**Ceifer Mubeşirniya**

Dîsan ewrên reş û tarî, esmanê dilê min dagirtiye û dengê teyr û tevalan ji daristanên welatê dilê min de kirr û mat kirine, hisret u kuvanên min dibin rondik û dilop dilop li ser rûmetê min ên hişk û xofgirtî de diherikin û deng û nalînên dayîkên dilşewtî di dol û newalên welatê dilê min da dibin lehîyek ji kerb û kînên pengurî, û morala minê pêşmerge bo cangorîkirin di rêya doza gel da xurttir dikin.

Dîsan evîndarên gelê min, pênûsê edîban bikar dixin û peyv û hevokan vedihûnin.
Mêrxasî û egîtîya evîndarên bi miraz negehiştiyên welatê min dikin çîrok û di guhê dergoşa dîrokê da dixûnin.

Wek çîroka Ferhad, ku Bêstûn vala kir ji evîna Şîrînê
Wek romana Memê Alan, ku Botan kir mesken û hêlîn ji eşqa Zînê
Wek tirajîdyaya Seîdê demokrat, ku Zîna wî nîştiman bû, Botana wî Birlîn

Birlîna îro reş, Birlîna îro dozex, Birlîna ku niha jî ji agirê wê dozexê cergê min diqele û ji dûkela wî agirî ye ku niha jî rondikên gelê min diherikin.
Lewma ger di rojên xweşiyê de jî rondikên min bihên xwar, bila kes loman ji min neke, bila nebêjin çima? bila nêbêjin lehiya rondikên çavên wî evîndarê dilbirîn ji çi ye.
Ger lomeyek pêtir bikin, bila ew hevokên han şîroveyek bin ji lehiya rondikên min û kuvanên dilê şevitî.

Şervan giriyan bo egîdekê
Cergê min ker bû bi carekê…

Her rondikek pêşmergeyekê
Çi caran di çeperekê
Çi jî îro di xewnekê
Dilope xwîn in tên ji cergekê…

Kela cerg min bir daristankê
Daristan qeliya bi carekê
Hewara min gehîşt erşê ezîm
Min got çima?.
Digot ev ne karê min e
Bibe here ser behrekê

Min kel bir ava behrekê
Behir kelî bi carek ê
Qîrîn ji min rabû

Min got çima?

Digot ho rêvîngo tu digiriy bo egîdekê,
yan jî dişevitî bo jidestçûna serdarek ê
serdarek ku rihên wî ji xwîn û axa welatekê
Xeyalên wî mezin jibo jiyandina netewekê

Ez jî dikelim bo helandina dar û berên welatekê
Wêca melûl bo min avêt çîrokekê

Digot qedîm zemanekê
Kotir civîyan bo pirsekê

Gotin yezdan bêpar kirîn ji hizrekê
Tew hizrîn dan rihliberekê
Ew hev dikujin li ser cîhanekê
Em hev digirin li ser kevirekê

Ez mam heyirî û min got çare?
Digot Kurdo tu hişyar be,
nexape bi gotinekê
Felek û dozex ketin çeperekê

Min got ew car jî fersendekê
melhemek bo birînekê

Digot siroşt bêtawan e
Herin ji yezdan bipirsin
Gazinda me jî bibin bal wî
Em jî ji wan mirovan ditirsin.



Kaniya Helbestan

## Du kurte helbest bo te Welat



**Hilbîn Muhemed Baqir**

Bo te Welat
Arek nû Mij
Xwezîk digotin
Miletê xwedê
Baranek dî libîr bike
Jibo govendê
Dibî xanî ûûû
ez
dibim Teyran, karwanek li dor
çerê
behsa te ye
tu jî vê çîrokê bi bîr bîne ve.
********* **********

(2 )
Bo te Welat
Pênc pîtên rûîs nimayîş dikim
Li her Pêncan de
Min tu ing
Li hindav şeraba lêvan
Dibim êxsîrê şevê
Li bextê te û hembêzê
Tu dibî ez
Tu dibî tu
Di bermayîkên pişt xwe
hêlayîn.
Di kulanên ber teng de
Li ser inge xwe min hawîş bike
û paşî binve.

Helbeen_baker@yahoo.com
**Veguhastin ji pîtên erebî bo latînî:**
Demhat Dêrikî



**Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne**

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:**
AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail:** agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com



# Çend gotinên binirx ji şehîd Dr. Sadiq Şerefkendî:

* Di nava azadiyên demokratîk de, anku ew mafên ku di sîstemên demokratîk de ji xelkê re naskirî ne, ji hemûyan girîngtir azadiya raderbirînê ye.

* Em bi xwe siyasetên xwe diyarî dikin, çimku em partiyek serbixwe ne, çi biçûk bin û çi mezin, çi bêhêz bin û çi hêzdar, em siyaseta serxwebûna siyasî a xwe naguherin.

* Ezmûna gelên cîhanê nîşan daye ku dermanê çareseriya giştî nexweşiyên jiyana siyasî û civakî, demokrasî ye.

* Dr. Qasımlo dixwast xelkê Kurdistanê bi wergirtina Otonomiyê, berî her tiştî hest bi kesayetiya mirovî a xwe bikin.

* Em gellek zilmlêkirî ne û pirr neheqî derheq me tê kirin, zordaran bi kuştina Dr. Qasimlo dixwastin bêjin me ku tenê demekê me mafê jiyanê heye ku li jêr destê wan de bin.

* Qebûlkirina zilmê ji zilmkirinê jî xirabtir e.

* Heya dema ku sîbera dîktatorî û kevneşopiyê bimîne, jiyanek rehet, bêdeng û bê pirsgirik bo tu kesê mumkîn nîne.

* Partiya Demokrar, Partiya şehîdan e. Vê partiyê bi kiryar nîşan daye ku qurbanîdan di pêxema azadiyê de ne tenê ji xebatê dilsar nake, belkî pêdagirtir û bawermendtir dike.

* Bi hemû hesta xwe daxwaz ji ciwanên xwîngerm û rewşenbîran dikim ku bêne nava qada xebatê û cihê betal yê Dr. Qasimlo pirr bikin.

* Pêka ew naveroka ku rejîma Îranê heye, ger bikare di gişt waran de xwe biguherîne, dîsan ji li warê mafê rastîn ên jinan, mirov nikare çavnihêrê tu helwestek pêşkevtiyane û tu guhertinek pozetîv bike.

* Xebatê şêwaz û rêyn cur bi cur hene û her kes pêka zirûf û karê xwe dikare bi şêwazên taybetî di xebata dijî rejîmê de beşdar be.

* Hêza sereke a bizava îroyîn a Kurdistanê, navbirî ye ji hêza xelkê.

* Erkê sereke yê her xebatkarek partiyê, pêkhatiye ji tekoşîn bona parastin û berfirehkirina piştevaniya xelkê ji partî û bizavê. Eva jî demekê digîje encamê û serkevtî dibe ku xelk bizavê bi ya xwe bizanin.

* Gelê qehreman û şoreşvan yê Kurd îsbat kiriye ku li jêr tu zext û givaşekê de ser bo dagîrkeran naçemîne û di her agirekê de bişewite, ji xweliya wî agirî car din ji nû ve agirê şoreş û serhildanê bi germ û gurriyek zêde û xurttir ji berê biteyîsîne.

* Sepandina dilxwaztirîn tiştê cîhanê bi zorî dibe sebebê çêbûna dijkiriyaran li hember de.